بسم الله الرحمن الرحيم

# PÊŞGOTİN

Hemed û şêkirî ji Xwedê re bê. Selat û selam li ser xwendê me, pêxemberê me û xoşevîstê me Resûlê Xwedê bê.

Xwîşk û birayên musilman, xwedê we biparêzê û gunehên we efû bikê ! Li ser me lazim e ku em çar (4) mijaran bizanin:

❶ **Îlm e;** ku ev jî, naskirina Xwedê Teala, naskirina Pêxemberê Xwedê û naskirina dînê îslamê ye. Lewra; ne durist e ku bêzanîn îbadetê Xwedê bê kirin. Ew kesê bêzanîn îbadet bike birastî jî ew ê têkevê şaşiyê; di vê mijarê de ew dibe mîna filehan.

❷ **Emel (kiryar) e**: Ew kesê zanabê û bi zanîna xwe emel neke ew dibe mîna cihûyan. Lewra cihûyan dizanî lê belê pê emel nedikirin. Yek ji hîlê şeytan ev e; ku mirovan ji hînbûna dînê îslamê dûrdixe û jê re dibêje: Mirov bi sedem nezaniya xwe li cem Xwedê mazûr e; guneh li ser tun e. Nizanê ku eger îmkana hînbûnê hebe û xwe hîn nekiribe birastî ew jê berpirs e. Ev, hîleya qewmê pêxemberê Xwedê Nûh (*selama Xwedê li ser be*) e; dema ayet ji wan re dihatin xwendin; "***tilîyên xwe dixistin guhê xwe û cilê xwe davêtin guh û çavê xwe***" da ku ayetên Xwedê seh nekin û jê berpirsyar nebin.

❸ **Gaziya mirovan bal îlm û emel ve**: Lewra zanist (alim) û gazîkerê doza heq warisê pêxemberan e. Birastî jî Xwedê lanet li Îsraîlîyan barand bi sebunet ku wan; "***ji kar û kiryarên nebaş ên ku dikirin hev ne didana paş, çiqas pis bû eva ku wan dikirin***". Gaziya heq û hînkirina wê ferzûkîfaye ye; eger hinek bi vî karî rabin mesûliyet li ser her kesî radibe. lêbelê; eger tu kes pê ranebe û gaziya bal heqqiyê û hînkirina wê terk bike hemî kes pê gunehkar dibin.

❹ Sebr û xweragirtina li ser eziyet û cefaya di ber hînkirina îslamê de, emelkirina pê û gaziya bi balê ve ye.

**"Ji bo ku em di rakirina cehaletê de bibin beşdar û da ku li ser talibê îlmê sehlayî çêbibe me hinek ji zanînên dînî ewên ku kifayetî bi wan hasil dibe di vê berhema kurt de me kom kirin."**

Di hazirkirina vê berhemê de me temahîya kurtasîyê kir û li ser ya ku ji pêxember hatiye. Em nabêjin ku em di amadekirina vê berhemê de gihane kemalê. Kemaliyet, ji wan salixên ku Xwedê ji bo xwe terxan kiriye. Lê belê ya me, xebata mirovê kêmtaqet e. Naxwe eger xebata me rast be vêca ew ji cem Xwedê ye û eger şaş û xelet be ew ji me û ji şeytên e. Xwedê û Resûlê wî ji her xeletî û şaşiyê bêrî ne. Rehma Xwedê li wî kesî be ku rexnegêriyeke avakerî bike û kêmasiyên me şanî me bide.

Em ji Xwedê daxwaz dikin; çiqas kesê di amadekarî, çapkirin, weşan, xwendin û hînkirina vê berhemê de beşdar bibe ku bi padaşa herî baş padaş bike, ji wan qebûl bike, xêr û mukafata wan qat bi qat zêde bike.

Xwedê bêhtir dizana. Selat û selam li ser pêxemberê me Muhemmed kurê Abdullah, li ser malbat û sehabeyên wî be.

**www.tafsiir.inf**
**krm@tafsiir.inf**

* **Îbn'umer** (Xweda jê razî be) **ev hedîs rîwayet kiriye:** "***Ne heqê mislimanî ye ku tiştekî wî hebe, ewê di bara wê de wesîyetê bike û du şevan raze. Her divê wesîyeta wî li cem wî nivîsandî be.***" **Muslim rîwayet kiriye.**

**Paşê Îbn'umer digot:** Ji dema min ew gotin ji peyxamberê Xweda (Selat û selam li ser bin) bihîst û pê de şevek di ser min re derbas nebûye ku wesîyeta min ne li cem min be.

***Îmam Ehmed** (rehma Xwedê lê bê) **dibêje:** Min kîjan hedîs nivîsîbe, min her pê 'emel jî kiriye. Heta ev hate bîra min ku Peyxamber (Selat û selam li ser bin) hîcam li xwe xistiye û heqdesta Ebûteyyîbe dînarek daye wî. Dema min jî hîcam li xwe xist, min heqdesta hîcamkarî dînarek dayê.

* **Îmam Buxarî** (rehma Xwedê lê bê) **dibêje:** Ji dema ez hîn bûm ku heybet heram e û pê de min hîç heybeta ti kesî nekiriye. Lewra ez hêvîdar im ku çav li Xweda bikevim û ji ber ku min heybeta ti kesî kiribe, ew min nekişîne hesabê.

* **Peyxamber** (Selat û selam li ser bin) **dibêje:** ***"Ew kesê ku di piştî her nimêjê de Ayetulkursîyê bixwîne, ji mirinê pê ve tiştekî din ji bo çûna wî ya cennetê nabe asteng.***" **Nessaî rîwayet kiriye.**

**Îbnqeyyîm** (rehma Xwedê lê bê) **dibêje:** Xeber giha min ku Şeyxulîslam gotiye: Heke ne bi jibîrkirinê û sebebên wekî wê be; min di piştî ti nimêjê de hîç terka wê nekiriye.

* Di piştî 'îlm û 'emel de jî, divê tu xelkê gazî wan ni'metên ku Xweda li te kirine, bikî. Gerek e tu nefsa xwe ji selat û selam li ser binaba teblîhê û dîgerên xwe jî ji xêra wê mehrûm nehêlî. Lewra Peyxamber (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Ewê ku xêrê nîşanî yekî bide, bi qasî sewaba failê xêrê sewab ji wî re jî heye.***" **Muslim rîwayet kiriye.**

Di hedîseke din de dibêje: "***Qenctirînê ew e ku Qur'anê hîn bibe û wê bide hînkirin.***" **Buxarî rîwayet kiriye.**

**Di hedîseke dîtir de jî dibêje:** "***Ji min teblîh bikin, çendan ayetek be jî.***" **Muttefequn eleyh.** Nexwe tu çiqas xêrê belav bikî, sewaba te jî ewqas mezin dibe. Di heyata te de û di piştî mirina te de jî xêr û hesenatên te dê dewam bikin. Lewra Peyxamber (Selat û selam li ser bin) dibêje: "***Dema însan bimre, 'emelê wî jê qut dibe. Lêbelê ji sê tiştan qut nabe: Sedeqeya carî, yan îlmekî ku menfiet jê tê dîtin, yan jî weledekî salih ku jê re dû'a dike.***" **Muslim rîwayet kiriye.**

(**Ronahîkirinek**! Em her rojê ji hivdeh caran zêdetir fatîhê dixwînin. Em tê de xwe ji "***Yên ku xezeb li wan hatiye kirin***" û ji "***rêşaşan***" diparêzin. Paşê jî em di kirinên wan de xwe dişibihînin wan. Lewra em îlmê hîn dibin û pê 'emel nakin. Di vê xusûsê de em xwe dişibihînin wan cihûyên ku xezeb li wan hatiye kirin. Yan jî em terka hînbûnê dikin da ku bi nezanî 'emel bikin. Di vê xusûsê de jî em xwe dişibihînin nesranîyên rêşaş!)

Em ji Xwedayê xwe dixwazin ku 'îlmê bi feyde û 'emelê salih bike para me. Xweda zanatir e. Selat û selam li ser hezkiriyê me û mezinê me Mûhemmed, ehlê wî û sehabîyên wî tevan bin.